*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd*
*di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (246) 20-01-2014 Buha (150) Tûmen



## *Birêz Mistefa Hicrî derheq kiryara terorîstî di Parîsê de nameyek ji serkomarê Firansayê re şand*

R: 2

*"Niha em dixwazin ku di demeke nêzîk de, civîna Deftera Siyasî ya herdu aliyan bigrin".*



Birêz Mistefa Hicrî

3

*Rêzdar Sidîq Derwêşî: "Şarezayî û rewanbêjî di axavtina Dr. Qasimlo de, bala min kişande aliyê xwe, û gellek bandor li min kir ".*



Birêz Sidîq Derwîşî

8

*Rikeberiya bandên mafyayî yên nav rejîmê û armancên wan*



5

*Çi "wehdetek"!*



6

*Jehra reşmarê Nûfil Luşato û laşê Ewropaya razayî*



7

*Yaşar Kemal rakirin nexweşxaneyê*



10

## *Jehra* ***reşmar*** *li ser laşê cîhaniyan*



**Carek din nûçeya ji nû ve vejîna destê terora Komara Îslamî ya Îranê li cîhanê belav dibe. Rojnameya "Boynos Ayrês Harld"'ê, roja Duşemiyê 29'ê Befranbarê (19.01.2015) eşkere kir ku termê bêcan yê Albêrto Nîsmen, dozgerê taybet bi keysa "Amiya" wate nawenda Cihûyan li Boynos Ayrêsê, di hemama mala xwe de hate peydakirin.**

Eva di demekê de ye ku biryar bû di heman rojê de, wate 19.01.2015'an, navbirî li parlemêntoya welatê xwe de hazir be, û belge û encama lêkolînên xwe ku hêzên ser bi Îtila'ata Komara Îslamî ya Îranê weke tawanbar didin nasîn, bixe ber bas û nêrîna parlemêntê.

Dom R: 2

## Sergotar

# *Yekîtiya Neteweyî*

Şehab Xalidî

Di meha Çileya Paşîn a sala 1946'an de, Pêşewa Qazî Mihemed avakirina Komara Kurdistanê ragehand. Wê demê Pêşewa Qazî Mihemed hêviya rizgariyê ji bo perçeyên din yên Kurdistanê jî xwast.

Lê mixabin temenê wê komarê gellek kurt bû. Niha piştî derbazbûna 69 salan bi ser avakirina Komara Kurdistanê re, em dibînin ku di her sê perçeyên din de guhertinên kûr çêbûne.

Lê mixabin di vê qonaxa hestiyar de, partiyên Kurdistana Rojhilat digel êş û azara veqetiyanên navxweyî, dest û tiliyan nerm dikin, û vê yekê derbên giran li tevgera rizgarîxwaziya Kurdistana Rojhilat xistine.

Xelkê Kurdistana Rojhilat, bi vê rewşa ku partiyên Kurdistana Rojhilat tê de dijîn, gellek xembar in, û hêvî û xwaziya wan ew e ku ew partiyên siyasî bi avakirina yekîtiyeke bihêz di navbera xwe de (di destpêkê de her yek ji wan partiyan di nav xwe de, û piştre jî hemû partî bi hevûdu re), bibin çirûskeke hêviyê ji bo wan, da ku ew jî bi hêviyeke zêdetir û bi dilgermî û coçeke xurttir tevlî xebata ji bo rizgariya neteweyî bibin.

Bê guman partiyên Kurdistana Rojhilat û bi taybetî PDKÎ bi başî hest bi nîgeraniya xelkê Kurdistanê kirine, û her di vê çarçoveyê de ye ku PDKÎ hem bi xwe dest bi gotûbêjan bi hevalên cudabûyî re kiriye, û hem jî daxwazê ji partiyên din dike, ku niha dem dema yekgirtinê û avakirina yekîtiyeke bihêz li ser bingeha berjewendiyên neteweyî ye.

Bi hêviya vê ku xelkê Kurdistana Rojhilat di demeke nêzîk de, vê yekîtiya bihêz bibînin, û bi piştgiriya zêdetir ji tevgera rizgarîxwaziya Kurdistana Rojhilat û bi taybetî PDKÎ, pêngavan ber bi lawazkirin û herifandina rejîma Îranê hilgirin, û komareke din ya demokratîk di Kurdistana Rojhilat de ava bikin. Wê demê ye ku riha pêşewayê Kurdan Qazî Mihemed û hemû şehdên riya rizgariya Kurd û Kurdistanê şa dibe.

# *Birêz Mistefa Hicrî derheq kiryara terorîstî di Parîsê de nameyek ji serkomarê Firansayê re şand*



**Kurdistanmedia: Sekreterê giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, nameyek bo "Franswa Oland" serkomarê Firansayê şand, û bi hinceta kiryara terorîstî di Parîsê de, serxweşî ji xelkê vî welatî re xwast.**

**Deqa wê nameyê bi vî awayî ye:**

Rêzdar serkomar:

Di vê dema xembar de ku dijminên pêşketina mirovahiyê, bi kiryara xwe ya terorîstî li dijî rojnameya "Charlie Hebdo"a welatê Firansayê, dergûşa azadî û buhagiraniyên demokrasiyê kirin armanc, ez bi navê PDKÎ û bi navê xwe sersaxiyê dibêjme te, û bi riya te ve jî, sersaxiyê ji xelkê Firansayê re dixwazim, ku hertim hevriyê neteweya Kurd bûne, ew neteweya ku di deverê de, û bi taybetî di welatê Îrana di bin deshilata melayan de, qurbaniyê terorê bûne.

Em bi tundî vê kiryara terorîstî û hovane pirotesto dikin û rêz ji cangoriyan, wate wan parêzerên azadî û buhagiraniyên demokrasiyê digrin.

Bi rêz û hurmet ve

**Mistefa Hicrî**
**Sekreterê giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Kurdistan, 8'ê Çileya Paşîn a 2015'an**

# *Katin: Rejîma Îranê wekî DAÎŞ'ê ye*



Kurdistanmedia: Senatorekî Komarîxwaz ê Amerîkayê, rejîma Îranê wekî çavkaniya şandina çek û teqemeniyan, û alîkariya aborî bi girtûpên terorîstî re dihesibîne.

Tam Katên senatorê Komarîxwaz yê Amerîkayê di gotareke xwe de rejîma Îranê wekî çavkaniya alîkariya aborî bi girtûpên terorîstî re, bi nav kir.

Navbirî amaje bi yasaya bingehîn ya rejîma Îslamiya Îranê, Spaha Pasdaran û Arteşê wekî berpirsê cî bi cî kirina erkên îdeolojiya cîhadî bi nav kir, û da zanîn ku rejîma Îranê wekî DAÎŞ'ê tevî rojava di şer de ye.

Wezareta Derve ya Amerîkayê jî tekez kiriye ku rejîma Îranê heya niha jî yek ji wan welatan e di cîhanê de, ku rêxistinên terorîstî bi çek û teqemeniyan û alîkariya aborî teyar dike.

Di wê pêwendiyê de, senator Têd Kiruz ku yek ji senatorên komarîxwaz yê Amerîkayê ji eyaleta Têgzas e, di axivtina xwe de xwazyarê ambargoyên pitir ên nû ji aliyê civaka cîhanî û bi xasmanî Amerîka li dijî rejîma Îranê bû.

**Doma R: 1**

Hewceyî basê ye ku di pêvajoya bombedanîna nawenda Cihûyan "Amya", 85 kesan canê xwe ji dest dan, û 300 kes jî birîndar ketin. Albêrto Nîsmen di encama lêkolînên xwe de, di sala 2013'an de ragehandibû ku, torên îtila'atî ên ser bi Komara Îslamî li Amerîkaya Bakur ji nû ve vejiyane, û bikerên vê bombedanînê ne.

"Êşpîgêl Anlayn"ê eşkere kir ku, Albêrto Nîsmen navê hindek ji kesatiyên bilind ên Komara Îslamî xistiye nava lêkolîna xwe. Albêrto Nîsmen herweha dide zanîn ku "Mohsin Rebbanî" şêvirmendê karûbarên çandî yê Komara Îslamî li Arjantînê di salên derbazbûyî de, berpirsê rêxistina tora sîxorî û îtila'atî ya Komara Îslamî di Amerîkaya Bakur de ye.
Albêrto Nîsmen herweha di tometnameya xwe de bas ji Muhsin Rizayî,



Elî Ekber Wêlayetî, Elî Ekber Haşimî Refsencanî, Ehmed Wehîdî, Elî Felahiyan û Hadî Silêmanpûr jî dike, û beşdariya wan di vê teqînê de nîşan dide.
Hevdem nûçegehaniyên Firansayê eşkere kirin ku "Ehmed Bin Mobarek" serokê nivîsîngeha serkomariya Yemenê jî, ji aliyê girûpa Ensarullah ya ser bi Komara Îslamî ve hatiye revandin.
Ji aliyekî din ve jî, li Sûriyê û di encama êrîşa Îsraîlê bo ser hêzên Hizbullaha Lubnanê û hêzêzn Spaha Pasdarên Îranê, 16 kes hatin kuştin, ku şeş kes ji wan endamên Spaha Pasdaran û xwediyê pileyên leşkirî bûne.

***Çend roj berî niha TISHk TV li derheq hinek pirsên girîng yên rojeva Îran û Kurdistanê, û bi taybetî li derheq pirsa navikî ya Îranê, û pirsa gotûbêjên di navbera PDKÎ û hevalên cudabûyî ji vê partiyê, gotûbêjek bi birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ re pêk anî, ku me bi hewce zanî beşek ji vê gotûbêjê di rojnameya Agirî de bilav bikin, ku eva jêr, beşek ji deqa gotûbêjê ye:***

**Birêz Mistefa Hicrî: “Bi baweriya min hekî em li ser pirsên sereke li hev bikin, ez hêvîdar im ku em bikarin li hev bikin, wê demê emê riyên eqlanî ji bo pirsên din jî bibînin”.**



**H: Selîm Zencîrî**

**Pirsyar: Heyamek e ku em dibînin çemk ya gotarek di nav hinek ji partiyên rojhilat de serî hildaye bi navê Rojhilat tewerî” yan “Kongireya Rojhilat”. Gelo raya PDKÎ di vê derheqê de çiye?**

**Bersiv:** Hekî tu boçûna PDKÎ bizanî, boçûna PDKÎ gellek zelal e. Navê me PDKÎ ye. Heya niha jî em li ser vê siyasetê diçin pêş. Wate hemû tekoşîna me pêwendiya wê, bi Kurdistana Îranê ve heye, ku eva siyaseta me ye, û niha jî ez bawer im ku hemû kar û tekoşîna me pêwenbdiya wê bi Kurdistana Rojhilat ve heye, lê di rastî de eva nayê vê wateyê ku em li derheq wan bûyeran ku di beşên din ên Kurdistanê de rû didin, bê helwest bin.

Em wekî hêzeke neteweyî li derheq her bûyerekê ku di beşên din ên Kurdistanê de rû didin, boçûn û helwesta siyasî ya xwe eşkere dikin.

Lê nêzîk bi heşt salan berî niha ew hevalên ku ji PDKÎ cuda bûn, wan peyva “Îran”ê ji navê partiya xwe jê birin, û arma partiya xwe kirin “çar çiya”, di cihê “yek çiyayî” de, ku di nav arma me de heye.

Wan xwast ku wisa nîşan bidin, ku ew neteweyîtir in, û kar û tekoşîna wan di çarçoveya hemû perçeyên Kurdistanê de ye, lê niha bi her sedemekê ve be, wisa diyar e, ku ew gihane vê qenaetê ku ew siyaset, siyaseteke serkevtî nebûye, û di rastî de niha vegeriyane ser vê siyasetê û kar û çalakiyên wan dibe di çarçoveya Kurdistana Îranê de be. Em vê helwesta wan bi helwesteke baş dizanin, û pêşwaziyê jê dikin. Em bawer in ku ew gihane encameke rast û dirust.

Lê ew guherîna siyasetê li derheq vê pirsê de, ku wan çar çiya di arma xwe de bi cih kirine, ku armanca wan çar perçeyên Kurdistanê ye, û peyva “Îranê” jî ji navê xwe veqetandine, digel siyaseta wan ya niha yek nagire.

Vêca ew bi xwe vê netebahiyê çawan cî bi cî dikin, eva pêwendî bi wan bi xwe ve heye. Lê her çi be, eva guhertineke erênî ye di siyaseta wan de.

**Pirs: Di heman demê de, aliyekî din jî bas ji “Rojhilat tewerî”, yan “Kongireya rojhilat” dike. Qest û niyet ji “Kongireya rojhilat” çiye. Yan boçûna we li ser vê yekê çiye? Hûn çawa pêşwaziyê ji vê yekê dikin?**

**Bersiv:** Ev yek ji aliyê Komeleya Şoreşger ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê ve kete ber bas, diyar e ku heyamekî berî niha ku em mêhvanê wan bûn, me boçûna xwe bi kurtî ji wna re bas kir, û piştre wan nameyek ji me re şand, û daxwaz ji me kirin ku em boçûna xwe li ser vê pirsê eşkere bikin, û amadekariyan bikin, bona vê ku em bi hev re bikarin “Kongireya rojhilat” pêk bînin.

Me bersiv da, û me got ku her yekgirtinek karekî pîroz e, û dibe kar li ser bihê kirin, û ew bi xwe jî dizanin ku me gellek hewl daye ku bereyek di navbera opozisyona Kurd ya Îranî de pêk bê.

Lê hinek kêşeyên rêkxistinî bûne astengî li ser vê riyê. Yek ji wan astengiyan ew e ku veqetiyanek di nav hevalên Komelê de çêbû, herwisa di nav PDKÎ de jî veqetiyanek çêbû.

Ew hemû astengî ne, li ser riya yekgirtinê. Lewra bi baweriya me berî vê ku bas ji kongireyeke bi vî rengî bê kirin, hewce ye ku pirsa wan veqetiyanan, ku bûne sedema wê ku hinek alî nekarin bi hev re bicivin, bêne çareserkirin. Lewra serbarê vê ku baskirin ji “Kongireya rojhilat” wekî îde baş e, lê carê ew yek nikare pêk bê.

**Pirs: We kerem kir, ku veqetiyan di nav partiyên Kurdistana Rojhilat de pêk hatiye, li derheq PDKÎ û pirsa yekgirtinê di gel hevalên cudabûyî ji PDKÎ, niha em dibînin ku di torên civakî de, berdewam bas ji yekgirtina hizbê, û pêkanîna partiya demokrat yayekgirtî dikin, li vê derheqê de, em dixwazin bizanin ku gelo ew pirsa gihaye kuderê?**

**Bersiv:** Gellek caran me bas kiriye, û dîsan jî ducarî dikim ku me wekî PDKÎ biryara kongireya xwe heye, ku hewlê bidin ji bo yekgirtina di gel wan hevalên ku ji PDKÎ cuda bûne.

Civînên Komîteya Nawendî jî heya niha pêdagirî li ser vê biryarê kirine. Em biryarên organên serê cî bi cî dikin.

Li vê derheqê de, ji mêjve ye ku em mijîlî gotûbêjan bi wan re ne. Niha em dixwazin ku di demeke nêzîk de, civîna Deftera Siyasî ya herdu aliyan bigrin. Ez û birêz Xalid Ezîzî jî emê tê de beşdar bin, da ku li ser astengiyên li ser riya yekgirtinê behs û gengeşê bikin.

Em hinek çûne pêş, û niha şûnda jî emê gotûbêjan bidomînin, lê ew pirsa nikare bilez û bi pêkanîna kempeynan cî bi cî bibe.

Yên ku di kempeynê de jî beşdar in, her kes bin, hez ji yekgirtina Kurd û Partiya Demokrat dikin.

Em jî wekî wî xelkî ji vê yekê hez dikin, ji ber ku berpirsayetî li ser milên me heye, lê hinek hûrgiliyên wê jî hebin, ku xelk agehdarî wan nebe. Lê em ji aliyê xwe ve dixwazin ku vê pirsê çareser bikin. Em hêvîdar in ku

em bigihîjin encamekê ku hemû xelk pê dilxweş bin.

**Pirs: Ew îrade û hezkirin çiqas bihêz e, di nav aliyê din de, yan eslen tu hewleke dilxweşker bo endamên malbata mezin ya Demokrat, yan dilsozên yekîtiya di navbera herdu aliyan de heye?**

**Bersiv:** Ya ku li ser wan hevalan dikarim bas bikim, bi baweriya min, ew jî dixwazin ku pêngavan hilgirin di vî warî de, û di gotûbêjan de dibe herdu alî ji hinek xwestekên xwe bêne xwar, da ku bigihîjin encamê.

Hekî her aliyek li ser daxwaziyên xwe pêdagir be, bê guman tu gotûbêjek nagihîje encamê, em bi berçavgirtina vê rastiyê ketin nav wan gotûbêjan de.

Bi baweriya min hekî em li ser pirsên sereke li hev bikin, ku ez hêvîdar im ku em bikarin li hev bikin, wê demê emê riyên eqlanî ji bo pirsên din jî bibînin.

Pirsyar: Pirseke din li derheq pirsa Kurd bi giştî ezê li cenabê we bikim, ku ew jî pêwendiya wê bi başûra Kurdistanê ve heye.

Heyamek e ku em dibînin ku di ragehandinên Kurdî de bas ji siberoja parêzgehênb Herêma Kurdistanê tê kirin, ku dibe bibin kanton. Wate ew mînaka ku di rojavaya Kurdistanê de heye.

**Heya bas ji Şingalê, û heya rdeyekê jî Kerkûk, Silêmanî û Qendîlê tê kirin, gelo helwesta PDKÎ di vê derheqê de çiye?**

**Bersiv:** Di rastî de helwesta me vedigere ser navê PDKÎ, û çalakî û tekoşîna me di Kurdistanê de, wate di vê beşa ku xelkê me li wir e.

Bi baweriya me xelkê her beşek ji Kurdistanê, rêkxirawên siyasî yên her beşek ji Kurdistanê, erka li ser milên wan e, ku di çarçoveya wê para ku tê de dijîn, kar û tekoşna xwe bidomînin, bona vê ku bikarin di bin barê zulm û zor û stemê de derkevin.

Em vê siyasetê bi rast û dirust dizanin û em li ser vê baweriyê ne ku her beşek ji Kurdistanê dibe ji bo rizgariya xwe tekoşînê bike.

Di heman demê de, em li ser vê baweriyê ne ku Kurdistan yek welat e, Kurd yek netewe ye, hekî her beşek ji Kurdistanê daxwaza alîkariyê ji me kir, em amade ne ku alîkariya wan bikin. Alîkariya bi vî rengî ku li ser bingeha daxwaziya xelk yan partiyên siyasî di her beşeke Kurdistanê de be.

Em dibe di hemû beşên Kurdistanê de alîkariya hevûdu bikin, bêy vê ku em destêwerdanê di nav karûbarên yektir de bikin.

Bi baweriya min ew siyaseta ye ku dikare xizmetê bi doza neteweya Kurd bike di hemû beşên Kurdistanê de.

Ez hêvîdar im ku ew nûçeya ku bilav bûye, siyaseta giştî ya partiyekê nebe, lê hekî ew yek rast be, ez bi zirara Kurd dizanim, ne tenê di Kurdistana Başûr de, belku di hemû beşên Kurdistanê de, ku aliyek bikare biryarê li ser qedera beşên din yên Kurdistanê bide.

Ez vê yekê ne di warê siyasî de, û ne jî di warê eqlanî de, bi rast nizanim. Dibe her beşek ji Kurdistanê, bi xwe çalakiyên xwe bike, bi taybetî li derheq başûra Kurdistanê de, ku niha Hikûmeta Herêma Kurdistanê di rewşeke hestiyar de ye, niha li dijî dijminekî wekî DAÎŞ'ê şer dikin, û kêşeyên wan yên aborî hene.

Em hemû dibe hewl bidin ku ne tenê her astengiyan bo wan pêk nehînin, belkû em dibe alîkarê wan bin, û astengiyên li ser riya wan kêm bikin.

**Pirsyar: Dawî axivtina we?**

**Bersiv:** Dawî axivtina min ew e ku ez hêvî bikim, ku ew astengiyên ku di navbera partî û aliyên Kurdî di hemû beşên Kurdistanê de hene nemînin. Ji ber ku wan astengiyan bandora nerênî kiriye ser ber bi pêşveçûna karên hemû beşên Kurdistanê.

Di vê qonaxa hestiyar de ku em tê de dijîn, her aliyek bi awayekî digel astengî û arîşeyên beşa xwe de ber bi rû ye, û hewce ye ku em hemû aliyek bi hesteke nîştimanperwerî û neteweyî alîkarê hevûdu bin, ku di rastî de ew yek alîkarîkirina bi me bi xwe ye.



**«Dibe her beşek ji Kurdistanê, bi xwe çalakiyên xwe bike, bi taybetî li derheq başûra Kurdistanê de, ku niha Hikûmeta Herêma Kurdistanê di rewşeke hestiyar de ye, niha li dijî dijminekî wekî DAÎŞ'ê şer dikin, û kêşeyên wan yên aborî hene. Em hemû dibe hewl bidin ku ne tenê her astengiyan bo wan pêk nehînin, belkû em dibe alîkarê wan bin, û astengiyên li ser riya wan kêm bikin».**

# Rikeberiya bandên mafyayî yên nav rejîmê û armancên wan



Dara Natiq

Herwekî ku rohn û eşkere ye, li jêr deshilata nizama Komara Îslamiya Îranê de, weliyê feqîh ku xwe wekî nûnerê Xwedê li ser erdê dihesibîne, bedela hemû xelkê welat difikire û biryarê dide, û hemû deshilata welat di pawan û qorixa wî de ye, û ji bo parastina deshilata reha ya xwe pişta xwe bi dem û dezgehên emniyetî yên welat û bi taybetî Spaha Pasdaran girêdaye.

Spaha Pasdaran ku piştî şerê heşt sale yê di navbera Îran û Îraqê de wekî hêzeke piştguhxistî dihate hesibandin, Xamineyî bi mifahwergirtina ji deshilata xwe wekî fermandarê giştî ê hêzên leşkerî karî ku mohreyên cihê baweriyê yên xwe di astên bilind ên Spaha Pasdaran de cihgir bike, û herwisa derfeta hewce ji bo beşdarkirina Spaha Pasdaran di warên aborî, ewlehî, îstixbaratî, çandî û siyasî de pêk anî, û bi vî awayî em dikarin bêjin ku niha ew hêza serkutkar deshilateke bilind di îdarekirin û siyasetdanîna welat de heye, û bê guman armanca Xamineyî ji vê siyasetê, dirustkirina organeke emniyetî û serkutkar a bihêz di hemberî dewletê de bû, bona vê ku her demekê hewce bû, da ku bikare ji vê riyê ve serkomar û kabîneya wî kontrol bike, û ji aliyekî din ve bo serkuta hêzên azadîxwaz û neyarên xwe, û parastina deshilata dîktatoriya xwe ji vê hêza mafyayî mifahê wergire. Niha em dibînin ku Xamineyî bi palpiştî û bihêzkirina dezgehên ewlehiyê yên xwe rêberiya baskê tundrev û kevneparêz ê nav deshilatê de dike, û kariye ji riya vê banda mafyayî ve hemû dezgehên îdarî û birêvebirî ên welat bixe jêr pawan û çavdêriya xwe û hevbîrên xwe de, û pêşiya hemû cure bizav û derfetekê bigre, da ku bibe sedema reform û guhertinên pozetîv di Îranê de.

Ji aliyekî din ve em dibînin ku komek band û girûpên din yên bi navê reformxwaz bi taybetî di dema hilbijartinan de, bi baskirina komek pirsên girîng ên siyasî, civakî û aborî û dana diruşmên reformxwazane, dixwazin ku bazara hilbijartinan germ bikin, û bala xelkê bo aliyê xwe rabikêşin, û bi vî rengî bigihîjin meremên xwe, ku ew jî parastina berjewendiyên takekesî û talankirina serwet û samana welat e.

Ya ku rohn û eşkere ye, ezmûna zêdetir ji sê dehikan deshilatdariya rejîma Îranê ye ku eşkere kiriye ku sîstema nizama niha reformhilgir nine, û tu taqm û girûpek, di her post û deshilatekê de be, nikare ji riya îrade û rêreva diyarîkirî ji aliyê wilayeta feqîh ve derkeve, û tu pêngavek di biyavê guhertineke siyasî û civakî û aborî de hilbigre.

Derbazbûna demê, û ezmûna çend dehikan deshilatdariya rejîmê ew rastiya eşkere kiriye, ku rikeberiya di navbera girûp û bandên mafyayî yên di nav rejîmê de, bi armanca bi destvegirtina deshilateke zêdetir û talankirina ser-



wet û samana welat e, û tu yek ji wan girûp û taqman, çi di dema hewldana bo bidestvegirtina deshilatê, û çi jî di dema deshilatdariyê de, berjewendiya giştî ya xelkê wî welatî berçav nagrin, û hewlên wan zêdetir ji bo bihêzkirina bandên mafyayî yên wan bi xwe de ye.

Lewra di çarçoveya sîstemeke daxistî wekî ya weliyê feqîh de, ku rêberiya banda mafyayî ya herî mezin ya di nav deshilatê de dike, ne serkomar û ne jî tu yek ji girûp û bandên din, heya hekî bixwazin jî, nikarin tu reformekê ji bo berjewendiya xelkê belengaz yên welat encam bidin. Civatgeha Îranê îro rojê bûye qurbaniyê bandên mafyayî yên di nav deshilatê de, û tevî zext û givaşa rojane, hevdem alozbûna rewşa aboriya welat û hejariya bêsînor, ku bûye sedema pêkhatina çendîn diyardeyên kirêt yên civakî, asta jiyana xelkê gellek dijwar kiriye, bi awayekî ku hêvîdarbûna bi jiyanê di asteke herî nizim de ye.

Bêguman tewahiya wan jî berhema siyasetên çewt û pawanxwazane, û rêreva gendelkariyên bandên mafyayî yên zal bi ser welat de ne, ku tenê di hizra parastina deshilatê û talan û diziya serwet û samana welat de ne, û bi çarenivîsa xelkê bêzarbûyî yê Îranê dilîzin.

Lewra rastiya îro rojê ya welatê me, vê yekê nîşan dide, ku tu yek ji girûp û bandên mafyayî yên di nav deshilatê de, nikarin bibin çavkaniya baweriya xelkê, û Îranê ji rewşa pirr kirîz ya niha rizgar bikin, û îradeya mafxwazane û azadîxwazane ya gelên Îranê bi giştî di pirsên çarenûssaz yên welat de beşdar bikin.

Lewra tenê riya rizgarbûna ji vê rewşa aloz hiloşandina sîstema dîktator û mafyayî ya rejîma melayî, û avakirina deshilateke demokratîk e, ku tê de yasa serdest be, û hemû pêkhateyên welat mafê wekhev di îdarekirina welat de hebin.

# *Franswa Oland:* Poşman im ku me li dijî Sûriyê şer nekir

Kurdistanmedia: Franswa Oland poşmaniya xwe derheq cî bi cî nekirina operasyona leşkerî ya welatên rojava li dijî rejîma Sûriyê, anî ziman. Li gora rapora Radyoya Farsî a Fransayê, serkomarê Fransayê ragehand ku ez seba encamnedana operasyona leşkerî li dijî Sûriyê, di sala 2013'an poşman im.

Navbirî di dirêjahiya axivtina xwe de got: "Mixabin ku welatên rojava nekarîne pêşiya kuştina xelkê sivîl yê Sûriyê bigrin, û poşîman im ku di dema hewce de me nekariye pêşiya pêşketina tundûtîjiyê bigrin.

Kurdistanmedia: Franswa Oland poşmaniya xwe derheq cî bi cî nekirina operasyona leşkerî ya welatên rojava li dijî rejîma Sûriyê, anî ziman. Li gora rapora Radyoya Farsî a Fransayê, serkomarê Fransayê ragehand ku ez seba encamnedana operasyona leşkerî li dijî Sûriyê, di sala 2013'an poşman im.
Navbirî di dirêjahiya axivtina xwe de got: "Mixabin ku welatên rojava nekarîne pêşiya kuştina xelkê sivîl yê



Sûriyê bigrin, û poşîman im ku di dema hewce de me nekariye pêşiya pêşketina tundûtîjiyê bigrin.



**Şehab Xalidî**



# Çi “wehdetek”!

Vê care jî, 28’emîn konferansa “wehdeta Îslamî” di Tehranê de bi rê ve çû, lê hêşta piropagendeyên xelkxapîn yên medyayên rejîmê derheq vê konferansê bi dawî nehatibûn, ku hêza Întizamî ya rejîma Îranê, pêşiya birêveçûna nimêja Înê ya Suniyan di Zahidanê de girt, ku Mewlana Ebdulhemîd dixwast pêşnimêjiya vê nimêjê bike. Herwisa berpirsyarên şaredariyê roja 27’ê befranbarê, deriyê nimêjxaneya Suniyan di herêma Punek ya Tehranê de daxistin.

Ebdulsetar Duşukî, birêvebirê nawenda lêkolînên Belûçistanê di Londonê de, di vê derheqê de ragehand: “Suniyan bi awayekî fermî tu nimêjxaneyek di Tehranê de tunînin, û di van salên borî de tenê holek ji xwe re bi kirê digirtin, û wekî mizgevt bi kar dianîn, lê ew nimêjxane jî her tim ji aliyê rejîmê ve dihatin daxistin”.

Ji aliyekî din ve Elî Muteherî nûnerê xelkê Tehranê di Meclîsa Şêvra Îslamiya Îranê de jî, her piştî bidawîhatina konferansê di Meclîsê de ragehand ku: “ Me nekariye ku “wehdeta Îslamî” pêk bînin, belku berevajî dijminatî di nav meseban de geşe kiriye. Sedem ew e ku em gellek qise dikin, lê kêm wan axivtinên xwe cî bi cî dikin. Dema ku pêşiya avakirina mizgevtekê ji bo Suniyan di Tehranê de tê girtin, eşkere ye ku dil nêzîkî yektir nabin, û ew jî di Meke û Medîneyê de hewl didin ku tolhildanê bikin”.

Mewlana Ebdulhemîd jî li derheq daxwaziyên Suniyan dibêje: “Em hêvî dikin ku peyrewên mesebê Sunî di bajarên mezin wekî Îsfehan û bajarên din de, bikarin azadane nimêjê bikin.

Eva ku Sunî bikarin di her bajarekî Îranê de ji xwe re mizgevtekê ava bikin, eva mafeke yasayî ye, û berçavgirtina vî mafî ye ku dibe sedema vê ku yekîtiya Îslamî di navbera me de pêk bê”.

Bêguman axivtinên Elî Muteherî û mewlana Ebdulhemîd diselimînin ku “wehdeta Îslamî” bi birêvebirina konferansên xelkxapîn û bi diruşmên bê kiryar pêk nahên, belku berî lidarxistina konferansên bi vî rengî, hewce ye ku berpirsyarên rejîma Îranê bi kiryar hewlê bo binbirkirina ferq û cudahîdanînan bidin, û guherînkariyan di dîtingehên xwe de, li derheq mesebên xeyrî Şî’e pêk bînin, û ruhaniyên Sunî meseb jî bi hêcetên wekî wehabiyet û selefîbûnê nehên girtin.

Elî Muteherî: “ Me nekariye ku “wehdeta Îslamî” pêk bînin, belku berevajî dijminatî di nav meseban de geşe kiriye. Sedem ew e ku em gellek qise dikin, lê kêm wan axivtinên xwe cî bi cî dikin. Dema ku pêşiya avakirina mizgevtekê ji bo Suniyan di Tehranê de tê girtin, eşkere ye ku dil nêzîkî yektir nabin, û ew jî di Meke û Medîneyê de hewl didin ku tolhildanê bikin”.



Bêguman “wehdeta Îslamî” tê vê wateyê ku mesebên Îslamê serbarê wan ferq û cudahiyên di warê bîr û baweriyan de, bikarin bi hev re bi awayekî aştîxwazane bijîn, û tu yek ji wan di hewla helandina mesebê din de nebe.

Lê mixabin di van çend salên borî de rejîma Îranê serbarê birêvebirina konferansa “wehdeta Îslamî” ne tenê bi kiryar hewl nedaye ku Şî’e û Suniyan nêzîkî hevûdu bike, belku berevajî di hewla serkuta peyrewên olên din û bi taybetî Sunî meseban de bûye, û armanca wê rejîmê ji “yekîtiya Îslamî”, ne ew e ku herduk meseban serbarê cudahiyan nêzîkî hevûdu bikin, belku ew dixwazin di çarçoveya siyaseta yek yekdestkirina hemû aliyên jiyana siyasî û civakî ya xelkê li ser bingeha îdeolojiya xwe, hewlê ji bo helandina Suniyan û hemû ayînên din di nav mesebê Şî’e de bidin, û bi vî rengî çemkên wekî “neteweya îranê” (miletê Îran) û “Umeta Îslamê” (Umetê Islam) – Îslamek ku tê de mesebê Şî’eya dozdeh îmamî serkirdayetiya hemû Misilmanan bike- piraktîze bike.

Di rastî de ew siyaseta ye ku netenê “wehdeta Îslamî” di hemû biyavên jiyana xelkê de pêk nahîne, belku berevajî di nav reh û rîşeya jiyana civakî ya xelkê de, “tefreqeya Îslamî” pêk tîne, ku renge ew “tefreqe” (kêşe û nakokî) heya roja mehşerê jî her berdewam bike.

# Nerîna Lîderan




Qasim Şeşo:

**"Em qebûl nakin tu kes ji Êzidiyan re encumenê ava bike".**



Hazim Mîr Tehsîn Beg:

**"Çêkirina kantonekê li Şingalê ji aliyê PKK'ê ve, destêwerdan e di karê başûra Kurdistanê de".**




Cemîl Bayik:

**"Li Kobanê, DAÎŞ tenê maskeya Tirkiyê ye. Eva Tirkiye ye ku şerê Kurdan dike, ne DAÎŞ".**



Franswa Oland:

**"Poşman im ku me di hemberî rejîma Beşar Esed de operasyona leşkerî çê nekir".**

# *Jehra reşmarê Nûfil Luşato û laşê Ewropaya razayî*





Selam Îsmaîlpûr

Bûyera terorîstî ya kuştara di nivîsîngeha kovara "Şarlî Hîbdo" ya Parîsê, û bûyerên ku du rojên piştre sertaserî Ewropayê hejand, û cîhan xiste nav fikaran de, cardin micidbûna li ser xebata li dijî terorîzm û tundreviyê, zêdetir ji berê wekî hewcehiyekê xiste ber bas. Ewropaya ku hêla jî di nav şoka çavkanîgirtî ji wan terorên zincîreyî de ye, û wekî 11'ê Septambera Fransayê bas ji wan terorên di Parîsê de tê kirin, bi tu awayî cuda ji Ewropayekê nine ku bi sala ye, gotûbêjên bi terorîzm û tundreviyê di bin perdeya pêwendiyên siyasî û aborî û siyasetên wergirtina koçberan de, kiriye kar û pîşeyeke asayî, û wisa hizir kiriye ku dibe bûyerên bi vî rengî, tenê wekî bûyerên asayî bihesibînin, û dev ji peydakirina çavkaniya rastîn û bingehîn ya wan berdaye.

Renge roja ku Xumêynî di bin darsêvekê di Nûfil Luşatoyê de, wekî karkarokek jehrdar serî rakir, û civaka siyasî û rewşenbîr ya rojava, wekî "ruhê cîhaneke bê ruh" bas ji wî dikirin, û rûçikê wî di nav heyvê de didîtin, qet nedizanîn ku niha di bin siya demokrasiya pêncemîn ya Fransayê de, dêvek di kirsê firişteyekê de xemilandine, û Mesîhê xeyalî bi kopalê Mûsa û bi ebayê Îbrahîm di çiraya sehrê de derxistine, bi zanebûn yan jî berevajî, reşmareke sirêbirî di bin cemedê de derxistine û danîne ber tîrêjên rojê, ku di demeke kêm de, tenê qurtkirina hemû cîhanê wê bikare birçîtiya wî bişkêne, û di demeke zû de, wê êrîşî ser wan bi xwe jî bike.

Dema ku ew Mesîhê xeyaliyê rewşenbîrên wekî Mîşil foko, ji mînbera Cemaranê ve, gef li cîhana pêşkevtî dixwarin ku: "Hekî hûn êrîşî ser dînê me bikin, emê êrîşî ser tewahiya cîhana we bikin", Ew hişdariya wî micid wernegirtin, û heta fetwaya kuştina Selman Roşdî jî, dijkiryareke wisa ji aliyê rojava ve li pey xwe tunebû, bê xeber ji vê yekê ku tiliya Ruhullahê Cemaranê li ser maşeya çekekê ye ku gefê li ewlehî û azadiya welatê wan dike.

Di vê Fransaya dergûşa demokrasiya rojava de bû ku celadên şandî ji aliyê Xelxalî ve, Şehriyar Şefîq teror kirin, lê tu kesî devê xwe li ser hev nerakir. Çend salan piştre qesabên Tehranê Şahpûr Bextiyar kirin armanca xwe, û gellek nekêşa ku Elî Wekîlîrad bikujê wî, wekî îmamê xwe ji riya xeta esmanî ya Parîs- Tehranê vegeriya nav himbêza terorîzmê, û berpirsyarên Wezareta Derve ya Rejîma Îranê, wekî dîplomatekî qehreman pêşwazî jê kirin, da ku wekî Enîs Neqaş, Yusif Emîn, Ebas Rahil, Kazim Darabî, Sehrarûdî û gellek mirovkujên din yên Îslamî ji rehmeta lihevkirina biyom ya demokrasî û terorîzmê mifahê wergirin.

Ji Dîtingeha gellek ji Kurdan, ku du rêberên mezin di Pîrlaşêza Parîsê, û gellek ji azadîxwazên xwe di riya wan pêwendiyên rojava bi terorîzma dewletî û binajotiya pêşkeşkirî ya Ewropa û Parîsê ji dest dane, û destana pirr xedar ya îskorta dîplomatîk ya terorîstan ber bi Îranê, bi tewahiya cesteyê xwe ve, me hest pê kiriye, kuştara Şarlî Hîbdo kêmtirîn serkevtin û tenê kopka çiyayê bi cemed ya karesatekê ye ku Ewropaya serê xwe di nav befrê de kirî, û parêzerê berjewendiyên aboriyê yên herî kêm jî, dibe çavnihêr be. Ewropaya ku bestera demokrasiya xwe kiriye bihuşta terorîstan, û ferşa sor ya di bin piyê tundrevan de, bê guman dibe bizane ku hekî nehête ser hişê xwe, ew pirs bi gotin û nivîsîna "Ez Şarlî Hîbdo me", û hilkirina momekê û rijandina rondikekê bi dawî nahê.

Di van çend rojên borî de, dijkiryara Wezareta Karê Derve ya Tehranê bi van pirsan, nîşan da ku deshilatdarên Tehranê, serbarê pirotestokirina bi berçav ya vê cinayetê, berdewam bas ji vê pirsa bi tehlûke kirine, ku hekî rojava daxwazkarê ducarîbûna bûyerên bi vî rengî nine, dibe qebûl bike, ku qurbaniyên wan teroran, tûşî karê tawanbarane bûne, (û dibe rijandina xwîna tawanbarên bi vî rengî bi helal bizane), û nabe bi hêceta azadiya raderbirînê bihêlin ku her kes çi bixwaze, bêje û binivîse!. Lê hêla nîşaneyek ji vê ku rojava û Fransa, ji îşareyên veşartî di nav van helwestan de têgihîştibin xuya nake.

Ragehandin û kom û komeleyên siyasî yên rojava hêla jî dixwazin ku di navbera Komara Îslamiya Îranê û tundrevî û terorîzmê, ku di bin kirasê ayîn de xwe veşartiye,cudahiyan danên.

Bi berçav ji bo nehêlana şik û gumana xweşbîniya rojava di hemberî "nermişa Qehremanane" ya rejîmê, û serkevtina siyaseta lihevkirina rojava digel Komara Îslamî, hêla jî dibe (bi gotina Xumênî) xwîn bêne rijandin, û pînûsên zêdetir bêne şikandin, da ku welatên rojavayî ji xewa giran veciniqin, û bedela kar û kiryarên bê encam yên xwe. Hewlê bo hişikkirina çavkaniya terorê bidin, ku ew jî Komara Îslamiya Îranê ye.

## *Rêzdar Sidîq Derwêşî: "Şarezayî û rewanbêjî di axavtina Dr. Qasimlo de, bala min kişande aliyê xwe, û gellek bandor li min kir ".*

H: Arif Velzî



Rêzdar Sidîq Derwêşî kurê Gurgîn di buhara sala 1973 (1352)'an de, di gundê Enbê, ser bi herêma Tergewera Urmiyê di malbateke hejar de tê dinê. Navbirî qonaxa destpêkî ya xwendinê, di Elwacê de dixwîne, û qonaxa nawendî jî di xwendingeha "13'ê Aban" de didomîne. Di demsala havînê de, serbarê dijberiya dê û bavê xwe, ew di gel xizmên xwe diçe kar, û xercê xwendina xwe derdixîne.

Birêz Sidîq Derwêşî derheq çawaniya nasîna navê PDKÎ weha ji rojnameya Agirî re axivî: "Her di dema zarokatiya xwe de bo yekem car di gundê Enbê de, ku ez li wir ji dayîk bûme, min pêşmergeyên PDKÎ dîtin, û di dema parvekirina pêşmergeyan bi ser malan de, min jî daxwaz ji çend pêşmergeyan kir ku bêne mal. Yek ji wan pêşmergeyan ez himbêz kirim, û ez hilgirtim heya ku em gihane mal.

Ez ewqas kêfxweş bûm ku min nedikarî nan bixom, û min tenê li pêşmergeyan dinêrî. Navê pêşmerge û hezkirina pêşmerge bû ku hêdî hêdî PDKÎ bi min da nasîn. Lê temenê zarokatiya min rê nedida min, ku ez bizanim ku hizb çiye, lê piştre ku min tekoşîna PDKÎ ya berdewam di navxwe ya welat û piştgiriya xelkê ji PDKÎ dît, min hêdî hêdî PDKÎ nas kir. Civatên cur bi cur yên civaka Kurdî, PDKÎ wekî alahilgirê tevgera nasyonalîstî ya Kurd di rojhilata Kurdistanê dizanîn.

Navbirî ji me re bas ji dema tevlîbûna xwe bi refên PDKÎ re kir: "Ew hezkirina ku her di destpêka zarokatiya xwe de, min bi PDKÎ û pêşmerge hebû, piştî salan di nav derûna min de bibû hesteke bihêz, lewra min biryar da ku bibim pêşmerge. Min bi malbat û xizmên xwe re bas ji hezkirina ji pêşmergatiyê kiribû, û di encamê de, di sala 1987 (Cozedana sala 1366)'an de, ez û kurmetê xwe bi navê cemîl hatin bo pêşmergatiyê. Di rê de û li Mêrge Ziyaret (di navbera Siwarê Zerê û Bozê Sîna de) me kadrekî PDKÎ bi navê Medenî û kesekî din b i navê Seyîd Elî dît.

Piştre jî me kekê Rostem Cehangîrî û kak Kemal Şerîfî û çend kesên din dîtin. Piştî çend roja em çûne binkeya hizbê li quntara çiyayê Qeraxan (li Tergewera Urmiyê). Piştî çend rojan li wir, em bi hinek ji ciwanên xwedî hest re, ber bi başûra Kurdistanê bi rê ketin, û li Bolê em çûne fêrgeha siayî-nizamî, û di dewreya 38 ya fêrgehê de me dewre dît, û bi vî awayî min kincên pîroz ên pêşmergatiyê li xwe kirin, û navê pêşmerge bû buhareke hertim zindî di derûna min de".

Birêz Sidîq Derwêşî weha ji me re behsa dîtina şehîd Dr. Qasimlo kir:"Heyamek bû ku min navê Dr. Qasimlo bihîstibû. Navê vî rêberî, wekî rêberekî jêhatî û şareza li ser zarê xelkê bû, lewra min gellek hez dikir ku bi çavên xwe Dr. Qasimlo bibînin.

Piştî derbazbûna 15-20 rojan bi ser dewreya fêrgehê de, beşa siyasî ya dewreya me dest pê kir, û wê demê gotin ku Dr. Qasimlo wê serdana we bike, û bi we re bicive. Em hemû gellekî kêfxweş bûn. Navbirî hate cem me, û piştî destdana digel me, li ser rewşa rejîmê û rewşa xebatê û erkên li ser milên me, zêdetir ji demjimêrekê ji me re axivî. Şarezayî û rewanbêjî di axavtina wî de, bala min kişande aliyê xwe, û gellek bandor li min kir. Lewra eva bîreweriya herî xweş ya jiyana pêşmergatiya min bû".

Birêz Sidîq Derwêşî weha bas ji bîreweriya xwe ya nexweş ji me re kir: "Bîreweriya herî tal ya jiyana min ew bû, ku min ji Radyoya Dengê Kurdistana Îranê guhdarî kir ku Dr. Qasimlo şehîd kirine. Xemeke giran ez dagirtibûm, û ez gellek giriyam, û çend rojan giryana berdewam jî nekarî derûna min aram bike, tu çareyek nebû, tenê yek rê hebû, ku ew jî sozdana bi şehîdên me bû. Lewra ez û hevalekî xwe yê din bi navê Mecîd Heqî me soz da ku heya dawiya jiyana xwe vê riyê bidomînin û di hizba Qasimlo de bimînin".

Navbirî derheq jiyana xwe ya hevpar bi vî rengî bersiva pirsa me da: "Di sala 2002 (Roja 28. 09 1381)'an de, min digel keçeke nîştimanperwer û hizbî bi navê Şafiye Ebdî ku jidayîkbûyê malbateke nîştimanperwer û şoreşger bû, min jiyan hevpar pêk anî. Her di wê demê de me şahiya xwe di mala birêz Rostem Cehangîrî, û di nawenda 3'ê de bi rê ve bir. Min du kur hene, bi navên Rêber 12 salî pola şeşê destpêkî, û Rêdar sala sê ya destpêkî, û keça min jî navê wê Ro'ya ye".

Navbirî bi vî awayî peyama xwe ji ciwanên Kurd re dişîne: "Peyama min bo ciwanên Kurdistanê ew e ku hekî pêşerojeke ronahî dixwazin, hekî li pey bîrokeyeke rasteqîne ya neteweyî digerin, hekî xwazyar in ku di nav civaka me de, rêz ji kerameta mirovî ya mirovan û pirensîpên mirovî bê girtin, û yasa serwer be, û xelk deshilatdarê rasteqîne bin, PDKÎ hilbijêrin, û palpiştê hertimî yê vê hizbê bin, PDKÎ partiya afirînerê çemka demokrasî û bîra modern ya nasyonalîstî, û navê pîroz yê pêşmerge bûye di civaka Kurdî de".



# Mizgefta nawendî a Suniyan li Tehranê hat daxistin

**Nawendên nûçegehanî ên Îranê ragehandin ku, roja Şamiyê 27'ê befranbara sala 1393'an, hêzên ser bi bajêrvaniya Tehranê êrîş birin ser mizgefta nawendî a Suniyan li taxa Pûnek a vê bajarî û, mizgeft bi tewahî daxistin û deriyê vê jî lehîm kirin.**

Kargêrê nawenda lêkolînên Belûçistanê li Lendenê, Ebdulsitar Doşokî serbarê piştrastkirina vê nûçeyê ragehand ku, şandiyên bajêrvaniyê tevî pêşnimêjê vê mizgeftê riftarên tund û nebaş kirine û herweha parek ji belgename û dêkyomêntên navbirî jî, tevî xwe biribne.

Doşokî herweha got, heya niha Suniyan bi awayek fermî tu mizgeft an nimêjxaneyek li bajarê Tehranê nine û tenê salonek hene ku, ew jî bona vê ku weke mizgeft bê bikaranîn, hewce ye ku îzn jêre bê wergirtin.

Eva di demekê de ye ku di 19'ê heyva Befranbara îsal de bû ku, jarek din her di vê mizgeftê de, rê li birêveçûna nimêja Suniyan bi pêşnimêjiya Mewlana Ebdulhemîd, zanayê Suniyan hat girtin.



# Nebûna avê li Kirmaşanê, gundan dide valakirin

**Li devera Serfîrûzawa ya ser bi parêzgeha Kirmaşanê, bi sedema tunebûna ava vexwarinê, xelkê çend gundan, dev ji jiyan û gundên xwe berdan û ber bi wan deveran ve çûn ku ava vexwarinê jê peyda dibe.**

Jêderên navxweyî ên Îranê ragehandin ku, eva 5 sal in ku xelkê wan gundan ji ava vexwarinê bê par in û, hikûmetê jî tu pêngavek derheq çareserkirina vê kirîza han, ne avêtine.

Akinciyek vê deverê bi navê Elî Mensûrî di vê derheqê de dibêje ku, pitir ji 23 gundên Serfîrûzawayê bi sedema kirîza avê dinalin, lewma heya niha 3 gund bi tewahî hatîne valakirin.

Navbirî herweha zêde kir ku, akinciyên wan gundan ku pitir jin 3 hezar kesî ye, neçar in her roj bona peydakirina ava vexwarinên herin gundên derdorê û ava vexwarinê bi kozik û alavên taybet ber bi malên xwe bibin.



# Bi sedema belavkirina nûçeya "Charlie Hebdo" hat daxistin

**Rojnameya "Merdomê Êmrûz" ya Îranê ku li bajarê Tehranê çap û belav dibe, bi sedema belavkirina nûçeya derheq bi êrîşa ser Kovara Charlie Hebdo a Firansî, ji aliyê hikûmetê ve hate daxistin.**

Sernivîskarê vê belavokê da zanîn ku, rojnameya wan tenê bi sedema belavkirina nûçeya derheq bi kovara Charlie Hebdo hate daxistin.

Husên Întizamî alîkarê wezîrê Kultur û Êrşada Îslamî ya Îranê di karûbarên medyayî de, berî ragehandina nûçeya daxistina rojnameya "Merdomê Êmrûz" ragehand ku, Encumena Medyayî ya Îranê, berî niha lidor belavkirina nûçeyên derheq bi êrîşa ser Charlie Ebdo yê, hişyarî dabûn rojnameya "Merdomê Êmrûz".

Hewceyî basê ye ku rojnameya "Merdomê Êmrûz" di hejmara xwe ya heftiya derbazbûyî de, wêneyek jî ekterê binav û deng yê sînemayê, "George colony" belav kiribû ku têde dibêje: "Ez jî Charlie me".



مردم امروز

کلونی: من هم شارلی هستم

کاریکاتور و

مطالبات بوش
از روحا

شکایت ۵۰ ن
از مطهر

# Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri**

Mirina kûçikan jî bi kûçikanî dibe.

**Anton Çexov**

Kûçik bê sedem nareyin.

**Kalevala**

Li welatê koran, yê bi çavekî dibe qiral.

**Erasmus**

Em hemû bi xerabiyên ji bo xwe dizanin.

**Tolstoy**

Bi mirovan xerabîkirin, ji kirina qenciyê hêsantir e.

**Eflatun**

Peyivîn, hunera mêjî bikaranîna mirovan e.

**Eflatun**

Tiştê ku tu dibêjî ez qebûl nakin, lê ez heta mirinê mafê te û gotinê diparêzim.

**Voltaire**

Kurte têgihîştina van gotinên dirêj çi ne?

**Schiller**

Carinan tiştê ku mirov ji hevdu re bibêje tune ye, lê dîsan jî mirov dipeyive.

**Senancour**

## Li deşta Heranê, avahî û tiştên kevnar ên nû hatin dîtin



**Lêkolînên xaknasiyê yên ku di havîna par de li Deşta Heranê ya Rihayê dest pê kiribûn, bi dawî hatin.**

Lêkolîn di Zanîngeha Heranê de, û bi alîkariya Qaymeqamiya Heranê û Şaredariya Heranê hatin kirin, û 80 kes beşdarî xebatên lêkolîn û kolandinê bûn.

Serokê lêkolîn û kolanê Prof. Dr. Mehmet Onal li ser vê yekê got ku li rojhilata Mizgefta Bala (Ulu) hemam, şîfaxane, cihekî avê, û avahiyek ku çar ode û hêwaneke wê heye, dîtine.

Onal destnîşan kir ku hemama ku hate kifşkirin, di serdema Eyûbiyan de ji aliyê Îbnî Şeddad ve hatiye çêkirin.

## Navenda PEN a Kurd: "Em hemû Charlie Hebdo ne".



**Navenda PEN a Kurd, di peyamekê de ku bi kurdî û îngîlîzî hatiye nivîsandin, hevxemiya xwe bi kovara fransî ya "Charlie Hebdo" re eşkere kiriye, û ragihandiye: "Em hemû Charlie Hebdo ne".**

Roja 7'ê vê mehê, li Parîsê kovara fransî ya Charlie Hebdo rastî êrîşa çekdarî hat, û di encamê de 12 kesan jiyana xwe ji dest dan, ku di nav wan de 4 rojnamevanên navdar ên Fransayê hebûn.

Di beşek ji daxuyaniya PEN a Kurd de hatiye:

…"Ez ne kurdim, gotinekê bi kurdî jî nizanim, ez navê yek nivîskarê Kurd nizanim. Ez çanda kurdan nizanim lê îro ez kurdim, wekî kurdekî hizir dikim, distirêm û wekî kurdan digirîm. Kurdên ku îro li Sûriyeyê şer dikin ne tenê wekî Kurd, lê ew wekî insan vê tekoşînê dikin. Ew parastina jiyana xwe, malbata xwe û welatê xwe dikin. Hûn bixwazin an nexwazin ew ruhê piraniya temsîl dikin yên ku di hember terorê de şer dikin. Ew ji bo me tevan şer dikin, ne tenê şerê DAÎŞ ê dikin".

Gerînendeyê kovara Charlie Hebdo "Stephane Charbonnier" çend meh berê di hevpeyvîneke xwe de wisa behsa kurdan dikir û mixabin di vê êrîşa hovane de tevî 11 hevalên xwe yên xebatkarên kovarê, bi destê rêxistinên ku îroj li dijî hebûna Kurdan şer dimeşînin, hate kuştin.

Navenda PEN a Kurd bi tundî vê cinayetê ya li ser kovara Frensî Charlie Hebdo şermezar dike, û peyama hevbendiyê û hêviyên şifayê ji birîndaran re dixwaze. Sersaxiyê ji gelê Fransa, endamên Navenda PEN a Fransî, hemû endamên Navenda PEN a Navneteweyî û hemû nivîskar û azadîxwazên cîhanê re dişîne.

## Yaşar Kemal rakirin nexweşxaneyê

**Romannivîsê Kurd Yaşar Kemal bi lez rakirin nexweşaneya Fakulteya Tip ya Stenbolê. Ji ber êşa dil û kezebê ew rakirin nexweşxaneyê û niha di bin çavdêriya doktoran de ye.**

Yaşar Kemal di 6'ê Cotmeha sala 1923'an li navçeya Osmaniyeya Edeneyê, li gundê Hemîteyê ji dayîk bûye.

Di sala 1952'yan de, pirtûka wî ya bi navê Keleka Havînê hate weşandin. Romana wî ya pêşîn, Memedê Zirav di sala 1955'an de derket. Di navbera salên 1955-1984'an de, 33 pirtûkên wî yên ku ji çîrok, roman, hevpeyvîn û bend û gotaran pêk hatine derketin.



Di hevdeh saliya xwe de, cara pêşîn hate girtin. Di temenekê biçûk de, dest pê kir li tembûrê xist, dengbêjî kir, bû stranbêj. Berhemê wî yên ku bûne filîmên sînemayê jî ev in: Destmala Spî, Dijminê Namûsê, Gakûviyê Belek, Evîna Karacaoğlan, Zeviya Mirinê, Efsaneya Çiyayê Girîdaxê, Mar Kuştibûna, Memedê Zirav, Erd Hesin Esman Sifir

# Zimanê Kurdî

## Beşa 8. Dema xwendinê

### Bajar û gund

Li bajaran sînema heye.
Li gundan sînema nîne.

Li bajaran bazargehên mezin hene.
Li gundan bazargehên mezin nînin.

Li gundan zevî û rez hene.
Li bajaran zevî û rez nînin.

Li gundan gelek ajel hene.
Li bajaran gelek ajel nînin.

Li bajaran .................. heye.
Li gundan .................. nîne.
Li bajaran .................. hene.
Li gundan.................... nînin.

Li gundan ……………..…. hene.
Li bajaran ………………...nînin.
Li gundan …………..……hene.
Li bajaran ………………..nînin.

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Malîkî mino, tu bi nîkilî ve.
- Girek di pêş te da, du qul têda.
- Kanîka qinê qinê, mîr û hakim dest didinê.

2- Ji goşt û hestî ye, Pênc şax û bi destî ye,
sed û yek huner lê ye, li heywana pê ye.
De bêjin ev çiye?

3- Sindirûka Silêmanî, ne li erdî, ne li esmanî.
- Ne li erda ne li esman e, hêlîna kesrewan e.
- Mirov di behrê da namirit.
- Ji wêda tê, yek li til e yek li mil e, yek jî têda
vile vile.

4- Serê wî yê vi te, binê wî yê vi deyka te.
- Kundirê di latê de, tamên vê qa dinyayê tê de.
- Şêv bi têxt va ye, qismetek xweşik pêve ye.
- Kanî ya li nizarî/kendalî, mîr û h`akima av jê vexarî.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

◆ Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (246)

## Çend wêneyek ji yekemîn serkomarê Kurdistanê, Pêşewa Qazî Mihemed








Rojek berî ragihandina Komara Kurdistanê- Mehabad

1- Îbrahîm Firoher 2- Seyîd Ubeydullah Eyobîyan 3-Rehîm Cewanmerd Qazî 4- Seyîd Mihemed Eyûbiyan 5- Mamosta Hejar 6- Mamosta Hêmin 7- Qazî Mihemed (Bînayî) 8- Mamosta Îbrahîm 9- Sidîq Heyderî 10- Fetah Misbah Qazî 11- Hecî Seyîd Ebdullah Eyûbiyan (Pako)